Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 122
06'ê Çiriya Paşîn a 2009
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Peyama Pîrozbahî Ya Mistefa Hicrî Bi Hilkevta Cejna "Xawenkar" A Ola Yarî
R.2



30 Sal Piştî

# BÛYEREKE NE REWA Û HELWÊSTEKE JÊHATÎ



Dagirkirina Balyozxana Amerîka û rehîngirtina 52 dîplomatên Amerîkî li Tehranê di 4ê Çiriya Paşîn a 1979an ji aliyê komek alîgirên tundajo ên Xomeynî bûyereke berevajî prensîpên navneteweyî bû û encamdana wê kiryarê xesar û ziyanên gelek mezin di warê siyasî û abûrî û dîplomatîk de gihandin Îranê û herî zêde xelk bû goriyê wê kiryara ne rewa.

30 sal berî niha û di wê rewşa taybet de ku piştî serkevtina şorişa gelên Îranê derketibû holê, di nav hêz û partiyên siyasî yên seranserî Îranê de tenê Partiya Demokrata Kurdistanê (PDKÎ) ew kiryar şermezar û mehkûm kir û wek kiryareke dijî qanûn û prensîpên navneteweyî hesiband.

Piştî derbazbûna 30 sal bi ser wê bûyerê, niha jî ew helwêsta pêşkevtî, modern, biwêr û hişyarane cihê pesna rêber û çavdêrên siyasî ên Kurd, Îranî û biyanî ye ku di wê rewşa teybet de wê partiya Kurdistanî karî helwêsteke wiha jêhatî û mirovdostane li hemberî wê kiryara ne rewa bigre. Bêguman helwestên dîrokî û jêhatî di pêvajoya siyasî de neyên jibîrkirin.

---

## Neteweyên Yekbûyî Rewşa Mafê Mirovan Li Îranê Gotûbêj Kir



Welatên endam ên Komîteya Sêyem a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, di 64'mîn civîna wê saziyê de li "New York"ê rewşa mafê mirovan li Îranê gotûbêj kirin.

Di çend rojên borî de, Nûnerê Swêd bi nûneriya welatên Yekîtiya Ewropa û nûnerên Amerîk, Kanada, Ustaralya bi cuda di Komîteya Sêyem RNY amade bûn û derbarê rewşa nebaş a mafê mirovan li Îranê axivîn.

Nûnerên wan welatan bal kişandin ser serkut, azar û êşandina hevwelatiyan û berteskkirina maf û azadiyên xelkê di sala borî de, bi taybet girtin, îşkencekirin û kuştina kêmaniyên neteweyî û xelkê nerazî li hember encama hilbijartinên îsal ên Serokkomariyê.

Di meha borî de jî Sekreterê Giştî yê NY di raporeke berfireh de, nigeraniya xwe derbarê rewşa xirab a binpêkirina mafê mirovan li Îranê da xuyakirin.

Tê çaverêkirin, Civata Giştî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî biryarnameyekê li dijî Komara Îslamî a Îranê der bike.

# Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDKÎ Derbarê Hewlên Ji Bo Çareseriya Aştîxwazane A Pirsa Kurd Li Turkiyê

Ji heyamekê berî niha ve hikûmeta Turkiyê di çarçoveya proseya vebûna siyasî de çareserkirina pirsa Kurd di wî welatî de aniye rojevê û li gor nûçeyan hikûmeta Turkiyê mijûl e gavan bo dabînkirina beşek ji mafên wî gelî bi awayekî aştîxwazane diavêje. Ew helwêsta Tirkiyê li hemberî Kurdan û pirsa rewa û berheq a Kurd li wî welatî bûye cihê keyfxweşbûna alîgirên demokrasî û dabînbûna mafên Kurdan. Ger ev helwêst bi başî rêve biçe, hem di berjewendiya giştî a welatê Turkiyê de dibe û hem Kurdên Kurdistana Turkiyê bi beşek ji maf û daxwaziyên demokratîk digihîne.

Di vê pêvajoyê de Partiya Kedkarên Kurdistanê (PKK) biryar da 3 girûp ji endamên xwe li Qendîl, Kampa Mexmûr û Ewrûpa bi nîşana pêşwazî li pêvajoya aştîxwazane a doza Kurd di wî welatî de bişîne bo Tirkiyê. Ev helwêsta PKKê ji aliyê xûşk û birayên me li Turkiyê û herwiha kom




û komeleyên navneteweyî û navendên siyasî digel pêşwaziyek germ rûbirû bû.

Niha ku ev pêvajo li hundirê Turkiyê ji aliyê beşek hêz û aliyên siyasî ên tundajo yên vî welatî digel dijberîkirin û dijminatiyê rûbirû bûye, lewra pêwîst e pêngavên gelê Kurd li Tirkiyê bi hûrî û şirovekirineke tevalî ji bo çareseriya aştiyê de bibe alîkar û piştevanê vê pêvajoyê ku dest pê kiriye û ji vê nerînê ve berpirsyariya PKKê berpirsyariyeke dîrokî ye.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, ligel ku kêfxweşbûna xwe bo hatne rojeva pêvajoya çareseriya aştîxwazane a pirsa Kurd di wê perçeyê Kurdistanê de dide xuyakirin, piştgiriyê ji gavên hêzên Kurdî ên vî welatî ji bo pêşdeçûn û serkevtina yekcarî dike.

Serkevtin bo xurtbûn û pêşdeçûna demokrasî di herêmê de û dabînbûna mafên demokratîk ên gelê Kurd li Kurdistana Turkiyê.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**27.10.2009**
**05.08.1388**

# Peyama Pîrozbahî Ya Mistefa Hicrî Bi Hilkevta Cejna "Xawenkar" A Ola Yarî

Xûşk û birayên min ên Yarsanî! Bi hilkevta Cejna "Xawenkar", cejna olî a peyrewên ayîna Yarî, ez pîrozbahiyên herî gem pêşkêşî we dikim û şadî û serbilindiyê bo we hêvî dikim.

Hûn keç û xortên azadîxwaz û welatparêz ên Kurd, peyrewên Ola Yarî ku bo parastina kultûr û nasnameya neteweyî a xwe digel rejîma dîktator a Komara Îslamî di xebat û berxwedanê de bûne, ji ber ola we, di 30 salên borî de mafên we zêdeyî xelkê din yê Kurd ji aliyê vê rejîmê ve hatiye binpêkirin û digel ferq û cudahiyên eşkere rûbirû bûne; lewra cejna rasteqîn a me hemûyan roja dawîhatina temenê rejîma Komara Îslamî a Îranê û damezrandina hikûmeteke demokratîk dibe ku li ser bingeha xwestek û vîn û îradeya hemû neteweyên maflêxwarî ên Îranê bi hemû nerîn û boçûneke olî ve hatibe avakirin. Ew roj jî bi kar û têkoşîna tevalî a me hemûyan misoger dibe.

Herdem di nav cejn û xweşiyan de bin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**02.11.2009**
**11.08.1388**



# Mesûd Kurdpûr Ji Kar Hat Avêtin

Mesûd Kurdpûr rojnemevanê Kurd û mamostayê Wezareta Perwerde û Hînkirinê li ser karê xwe hat derkirin. Li gor rapora Komeleya Çalakên Mafên Mirovan li Îranê, Mesûd Kurdpûr ku berî niha bi cezayê dûrdxistin û girtinê hatibû mehkûmkirin, bo cara sêyem bi tometa rexnegirtin li siyasetên dewleta Komara Îslamî a Îranê li hember deverên Kurdakincî yên Kurdan di van salên dewî de, ji aliyê taya 3 ya dedgeha pêdaçûna bi serpêçiyên Îdarî bi kirîna paşmaweya xizmeta xwe hate mehkûmkirin.



Mesûd Kurdpûr ku nêzîk 22 sal pêşîneya wanegotinê di xwendingehên paş navendî de heye ew biryar bi ne adilane û ne yasayî hesiband. Mesûd Kurdpûr herwiha da zanîn, çalakiyên di warê parastina mafên mirovan û hînkirin û hişyarkirina welatiyan û ciwanan ne tenê tawan nine belkî kesanek ku di wan waran de çalakiyan dikin, dibe bên handan û piştgirî ji wan bihê kirin. Kurdpûr ragihand: li hember wê biryarê dê nerezîbûna xwe bide nîşandan û herwiha dê çalakiyên xwe di pêvajoya baştirkirina rewşa mafên mirovan de bidomîne

# Daristanên Rojhilatê Kurdistanê û Karesata Jinavçûna Wan



**Azad Kurdî**

Çavkaniyên xwezayî û bi taybet daristan rolek gellek bi bandor di jiyan û domkirina jiyê canliberan bi giştî û nemaze mirovan de dilîze û bi awayekî rasterast li ser pêşdeçûna hemû warên civakê karîgerî û bandorê dikin û herî zêde di pêşketina senet û teknolojiyê de giringiya berçav heye. Lê mixabin îro rojê neparastina çavkaniyên sirûştî û bi taybet daristanan bûye kirîzeke cîhanî û parêzerên jîngehê li seranserê cîhanê nigeran kiriye û di derbarê vê pirsgirêka mezin a cîhanê de û xeterên wê berdewam hişyariyê didin raya giştî.

Li gor daxuyaniyên rêxistinên navnetewî, Îran di nav 56 welatên xwedî daristan de pileya 45 heye. Di welatên xwedî daristan de, pişka her kesekî li daristanan 8 hektar e, lê di Îranê de asta vê pişkê bo 2 hektaran dabeziye. Li gor serjimêriyên fermî, di Îranê de 2/14 milyon hektar daristan hene ku bi sedema giringî û nedan bi wan, li cihê zêdebûn û berfirehbûna wan, salane 12 milyon metrên çargoşe ji wan daristanan bi sedemên curbicur ber bi neman û ji navçûnê diçin. Vê rewşê, bandor û ziyan û xesarên cuda li ser xweza, aborî, pîşesazî, cotkarî û wd... daniye.

Daristanên Rojhilatê Kurdistanê wek samanek mezin a mirovî û netewî ya wê deverê ne, lê heyamê çendîn sal e agir berdidin wan û tên şewitandin û domkirina wê pêvajoyê jiyana xweza û daristanên gund û bajarên Kurdistana Îranê digel metirsiyeke micid rûbirû kiriye. Sirûşta xemilandî û dilber a gund û bajarên Rojhilatê Kurdistanê rûçikeke ciwan daye wan çar parêzgehên Kurdan, lê şewitandina berdewam û sîstematîk a daristanên Kurdistanê piraniya xelkê û bi taybet parêzerên jîngehê li Kurdistanê nigeran kiriye.

Daristan, bostan, bax û war û zozanên bajarên Sine, Kamyaran, Qurwe, Seqiz, Bane, Merîwan, Sewlava, Pawe, Îslamabad, Gîlanxerb, Serpêla Zehaw, Ciwanro, Selasa Bawecanî û çendîn herêm û bajarên din ketine ber pêla berfireh a agir û hatine û tên şewitandin. Ji pênc salên borî pê de heta niha, bi taybet di sala 2009'an de, rêjeya herî zêde a şewitandina daristanan li dever û bajarên wan du parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê çêbûne. Bi curekê ku paşmayiyên piştî şewitîna darsitanên Kurdistanê gelek xuya û berçav e û piraniya wan daristanan û xwezaya dilber bûye rejûyeke reş û jîngeheke wêran û şewitandî.

Li gor rapora rêxistinên ne hikûmetî ên parêzerên jîngehê li Rojhilatê Kurdistanê, di sê mehên havîna îsal de, tenê li bajarên



Li Kurdistanê bi hezaran hektar daristan di salê de tên şewitandin, lê çi alî û saziyeke Komara Îslamî a Îranê tuneye ku bo vemirandina agirê daristanên Kurdistanê gavan bavêje

Merîwan û Sewlava, li encama zêdeyî 200 car agirberbûn li daristanên wan du bajaran ji destpêka îsal, heta niha, 2 hezar û 500 hektar ji daristan bi agir hatine şewitandin, herwiha li encama aliyê kêm 60 bûyerên agirberbûnê li daristanên Bane di sê mehên havîna sala 2009an de, 300 hektar ji daristanên wî bajarî bi tevahî hatine şewitandin. Herwiha li gor serjimêriya rêxistin û NGOyên ne hikûmetî ên parêzgeha Kurdistanê jî, di heyamê sê mehên havîna îsal de, 10 hezar hektar ji daristanên wê parêzgehê hatine şewitandin û ew jî bi tevahî ji nav çûne û karbidestên Komara Îslamî jî ew serjimêrî red nekirine.

Karbidestekî Navenda Bûyerên çaverênekirî ya parêzgeha Kirmaşanê ragehand; tenê di meha Hezîrana 2009an de, li çend bajarên wê parêzgehê 2 hezar û 31 hektar daristan hatine şewitandin ku bi wê sedemê ziyan û xesarên zêde ên aborî çêbûne. Daristan û zozanên çiyayê Şaho herî zêde hatiye şewitandin, bi curekê ku rojek nine ku agir bi daristan û xwezaya çiyayê Şaho neyê berdan. Li encama agirberdana daristan û xwezaya çiyayê Şaho, beşek mezin a xwezaya wî çiyayê bilind yê Kurdistanê hatiye şewitandin û xwezaya wê têk çûye.

Ligel wê çendê ku beşeke kêm li şewitîna daristanên wan du parêzgehan ji ber sedemên xwezayî pêk tên, lê beşê sereke yê agirtêberdanê ji aliyê hêzên çekdar ên Sipaha Pasdaran û Hêza Întizamî a Komara Îslamî a Îranê li wan herêman hatine û tên encamdan. Xala balkêş di vê derbarê de ew e ku di dema agirberdana daristanên Kurdistanê bi destê hêzên çekdar ên rejîma Îranê de, çaxê ku xelk û bi taybet rûniştvanên wan herêm û bajaran, ligel hemû kêm îmkanatiyan amade ne bo vemirandina agir biçin cihên bûyerê, lê hêzên Komara Îslamî ji xeynî ku bixwe tu hewlekê nadin, çûna xelkê jî asteng dikin. Her car ku xelk dixwaze bo temirandina agirê daristanan biçin cihên bûyeran, digel dijkiryar û pêşgîrî û heta riftarên tundûtûj ên hêzên Komara Îslamî rûbirû dibin. Li gor vê yekê, ew hêz ne bixwe û ne jî îdareyên rûyekî û nimayişî û neberpirs ên wan bo vemirandina agirê daristan û sirûştê Kurdistanê gavan diavêjin, ne rê didin xelk û çalakên sivîl û parêzerên jîngehê agirê daristanan bitemirînin.

Di Îranê de sê rêxistinên binav bo parastina xweza û jîngehê, bi taybet ji bo daristanan hatine organîzekirin; Rêxistina Daristan û Çêrîngehan, Rêxistina Parastina Jîngehê û Navenda Bûyerên çaverênekirî, ku binav karê wan hemû saziyan parastina jîngehê li seranserê Îranê ye, lê derbarê şewitîn û şewitandina hezaran hektar daristanên parêzgehên Kurdakincî ên Îranê, her yek ji wan erk û berpirsyariya xwe dixe stûyê rêxistina din û hêşta piştî derbazbûna 30 salan, mekanîzmeke jêhatî û piraktîkî bo vemirandina agirê berdewam yê daristanên Kurdistanê di heyamê çend salên borî de berçav negirtine.

Ger mirov şik û gumanê bike derheq armanc û herwiha kar û kiryarên wan li Kurdistanê, ne şaş e; ji ber ku şêweyê karkirina wan li Kurdistanê wê yekê nîşan dide ku ew bi qestî wî karî dikin û xemsariyê nîşan didin. Wan sê saziyên Komara Îslamî li encama agirtêberdan û şewitîna berfireh a daristan û sirûştê gund û bajarên Rojhilatê Kurdistanê heta niha tu pêngaveke pêwîst û bi fêde neavêtine û hêj pirsgirêka burokratîk û îdarî bi hev re hene û ji wan re ne giring e çi tê serê daristan, çêrîngeh û war û zozanên Kurdistanê.

Li halekê ku di welatên din ên cîhanê de, li dema agirberbûn û şewitîna daristan û xwezayê, hemû hêzên hikûmetî û ne dewletî diçin hawara jîngehê, lê li Kurdistanê bi hezaran hektar daristan di salê de tên şewitandin, lê çi alî û saziyeke Komara Îslamî a Îranê tuneye ku bo vemirandina agirê daristanên Kurdistanê gavan bavêje û daristanên Kurdistanê ji xetera neman û ji navçûnê rizgar bike.

# Di Kongireya Partiya Sosyal Demokrat A Swêdê De Enfalkirina Kurdan Wek Jînosayd Hat Naskirin

## Şandeke PDKÎ Di 36emîn Kongireya Partiya Sosyal Demokrat A Welatê Swêdê De Beşdarî Kir.

**Di Kongireya Partiya Sosyal Demokrat A Swêdê de Enfalkirina Kurdan wek Jînosayd hat naskirin. Perwane Heyderî nûnera PDKÎ li welatê Swêdê, li ser vexwendina fermî ya Partiya Sosyal Demokrat a Swêdê di 36emîn kongreya wê partiyê de başdarî kir.**

Roja 28 Çiriya Pêşîn a 2009'an, ew kongre li jêr navê "Kongra Kar" dest bi xebatên xwe kir û heta roja 1ê Çiriya Pêşîn a 2009'an dom kir.

Perwane Heyderî di pêvajoya xebatên wê kongrê de, digel çend kesayetiyên navdar hevdîtin pêk anî, Çend kes ji wan kesayetiyan ev in: Ana Lînd berpirsa têkeliyên navnetewî ya Partiya Sosyal Demokrat, Bêlingham nûnerê Partiya Lîbral a welatê Birîtaniya, Ferec Zayûb berpirsê têkeliyên dereve yên rêxistina Feth a Felestînê, Vilalêna Tîxwa nûnera Partiya Heq ya welatê Rûsiya û Nalîn Baskî berpirsa Yekîtiya Jinên Sosyal Demokrat a welatê Swêdê.

Behsên sereke yên wê kongrê ev bûn: Girîngiya vegeriyana Partiyên Sosyal û Sosyal Demokrat bo ser deshilatê, Bêkarî, parastina jîngehê û kirîza aborî. Herwiha di vê kongrê de qirkirina Kurdan û kuştina bi kome ya Ermeniyan wek jînosayd hatin naskirin û wek wezîfeya Partiyên Sosyal Demokrat hat zanîn ku hewlê bidin bo wê yekê ku Yekîtiya Ewropa û Rêxistina Neteweyên Yekbûyî jî wan du pirsan wek jînosayd nas bike.

Rêveberên Partiya Sosyal Demokrat a welatê Swêdê di wê kongrê de piştevaniya xwe bo pêkhatina azadiya siyasî bo Kurdan, di welatên Îran, Turkiye Sûriyê de diyar kirin.



Hêjayî gotinê ye ku hejmarekî zêde ji partiyên endam di rêxistina Enternasyonala Sosyalîst de bo wê kongrê hatibûn gazîkirin. Herwiha Perwane Heyderî di çend semînarên din de beşdarî kir û axivî: Semînara lênêrînek bi ser siyasetên me berî 11ê Îlonê û piştî 11ê Îlonê û semînara jordebirina beşdariya xelkê bi taybetî jinan di jiyana siyasî de.

# Du Çalakên Sivîl Ên Kurd Ji Xwendinê Hatin Bêparkirin



Du çalakên sivîl ên Kurd bi navên Peyman Newdîniyan û Azad Lutfpûrî ku di ceribîna karnasiya bilind a zanîngeha Azad de serkevtin bidest anîbûn, ji xwendinê hatin bêparkirin.

Ajansa Nûçegihaniya "Mukrian" di vê derbarê de diyar kir, Peyman Newdîniyan, Mamosta û Sekerterê Civata Senfî ya Mamostayên Parêzgeha Kurdistanê ye ku di rişteya Edebyata Îngilîzî ya yekeya bajarê Kerecê û Azad Lutfpûrî çalakê sivîl ku di rişteya zanistên siyasî ya yekeya zanist û lêkolînan di qonaxa karnasiya bilind de hatine wergirtin, ji xwendinê hatine bêparkirin.

# Kedkarên Nanpêj Yên Bajarê Sine Dest Da Gireva Nerezîbûnê



Roja 26 Çiriya Pêşîn a 2009'an, kedkarên nanpêj ên bajarê Sine bo demê sê demjimêran gireva nerezîbûnê lidar xistin. Nûçegihaniya Kurdistan di vê derbarê de da zanîn, wan kedkaran sedema girevgirtina xwe bo wê yekê dan zanîn, ku biryar bû di destpêka sala nû ya 1388 a Rojî hemberî 2009 a Zayînî meaşê wan zêde bikin, lê heta niha jî wek salên berê meaş bi kedkaran tê dan.

Hêjayî gotinê ye ku, kedkarên nanpêj bi sedema kirêza abûrî û giraniyê di bin zext û givaşan de ne.



# Zext û Zordariya Bo Ser Xelkê Bajarê Mehabadê Her Diçe Zêde Dibe



Roja 25ê Çiriya Pêşîn a 2009'an, hêzên ewlekarî yên rejîma Komara Îslamî a Îranê, di doma girtin û binçavkirina xelkê bajarê Mehabadê de, ketin nav mala yek ji girtiyên siyasî bi navê Cehangîr Baduzade û piştre dest bi ser pitûk û CDyên navhatî de girtin. Dûre hewla girtina hevjîna Cehangîr jî dan.

Li gor rapora Komeleya Çalakên Mafên Mirovan li Îranê, Tûran Baduzade hevjîna Cehangîr, piştî haydarbûn bi wê meselê, digel kurê xwe ber bi çiya helatiye.

Hêjayî gotinê ye ku Cehangîr Baduzade heyamê çend sal e di girtîgeha bajarê Urmiyê de ye. Berê kurê mezin yê Cehangîr bi navê Rizgar ji aliyê yek ji kirêgirtiyên rejîma Îslamî a Îranê bi navê Ezîz Kanebî di bajarê Mehabadê de hat kuştin.

**Çend jinên Kurd li Mehabadê hatine girtin**

Herwiha raporên din behsa wê yekê dikin, ku hêzên ewlekarî yên rejîma Îslamî a Îranê hejmarekî din li jin û ciwanên bajarê Mehabadê û çend gundên derdora wî bajarî bi tometa hevkarîkirin digel partiyên dijber ên rejîma Komara Îslamî a Îranê girtin ku nasnameya wan nehatiye eşkerekirin. Herwiha Kejal Şêx Mihemedî û Şîrîn Ehmedî girtiyên wê dawiyê yên bajarê Mehabadê ne, ku heta niha li girtîgehê di bin lêpirsînê de ne.

# Kovara Xwendekarî Ya "Çirîkey Beyan" Hat Qedexekirin

Kovara xwendekarî ya "Çirîkey Beyan" ku ji aliyê xwendekarên Kurd ên zanîngeha bajarê Tewrêzê dihat weşandin, hat qedexekirin.

Li gor Nûçegihaniya Kurdistanê, roja 31ê Çiriya Pêşîn a 2009'an, ew kovar ji aliyê beşa parastina zanîngeha bajarê Tewrêzê ve hatiye qedexekirin. Weşandina wê kovarê di sala 2005'an de dest pê kiriye û heta niha 15 hejmar jê hatiye belavkirin.

Hêjayî gotinê ye ku kovara "Çirîkey Beyan" di mijarên xwe de pirsa netewî ya Kurd û Azerî dixist rojevê û li ser peywendiyên Kurd û Azeriyan pêdagirî dikir.

Herwiha di çend rojên borî de xebatên Navenda xwendekarên Kurd **VEJÎN** li Zanîngeha Zencanê jî hat qedexekirin.

RONÎ

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

**Ebdullah Hicab**



# Rexne Ji Rêber

Tenê gazindeyek biçûk ku yek ji xwendekarên Zannîngeha Pîşesazî ya Şerîf li Îranê ji rêberê olî yê rejîma Komara Îslamî a Îranê Elî Xameneyî kir, ev çend roj in dubare meşrûiyeta sitûna sereke ya hebûna Komara Îslamî, Wilayetê Feqîh xistiye bin pirsê. Gazindeya wî xwendekarî, ku zehmet e mirov bikare bixe xaneya "rexne"yê, ev bû ku hin dezgehên desthilatdariyê û medya her çend bi fermana rêber birêve diçin, lê bi başî tev nagerin û kêmasiyên karê wan pir zêde ne. Li gor gotinan, Xameneyî ev gazinde pejirandiye û bi xwe jî gazinde kiriye ku hin kar bi dilê wî nameşin. Bi taybet ev ji hin programên televizyonên xwe nerazî ye ku carna bi "zêdegavî" programên wisa diweşînin ku haya wî jê nîne û ev dema ew pê dihese, dibîne ku zerara wan programan ji qazanca wan pitir e.

Ev babet di civîna Xameneyî de bi hin komên bijarde re ku weke pêşengên "rewşenbîr" hatin nasandin, kete rojevê û ji wê demê ve bûye mijara bas û nîqaşên germ li ser rexne û rexnegirtin di Komara Îslamî de. Di civîna bas jê tê kirin de, serokê olî yê rêjîmê, bi tenê meseleya hin programên televîzyona Komara Îslamî bas kir û xwe ji bersivdana gazindeyên li ser zêdegaviyên hêzên ewlekariyê parast.

Rê û cihên ku Xameneyî her di wê civînê de ji dezgehên ragehandinê re diyar kirin û ew dîtinên ku demek e ew di derbarê sîstema perwerdeya civakî de tîne ziman, rêjîma Komara Îslamî ber bi siyasetek hê hişktir ji ya niha ve dimeşîne. Helwêstên Xameneyî di wan çend rojên dawî de pir eşkere nîşan dide ku ev bi biryar e bi zexta çek û tundûtûjiyê hemû rexnegirên xwe dubare bêdeng bike. Ew yek jî wê gumanê xurt dike ku Komara Îslamî dîsan bi serhişkî biryar daye di dema pêş me de, bi yekcarî, pêşiya wan dengên rexnegir ku ev demek e bilind bûne bigre û rexnegirên ku carna gotinekê li ser karên şaş ên karbidestan dibêjin bi tundî ceza bike.

Lê rexneyên ku heya niha di çarçoveya sîstemê de çê bûne, bi tenê li ser wan kesan bûye ku di astek nizm ya birêveberiyê de ne. Hem kiryarên wan 30 salên dawî yên rêjîmê û hem ev bingeha fikrî ku Komara Îslamî diparêze, bi awayekê meydan ji dîtinên cuda û rexneyê re teng kirine ku tenê gazindeyek piçûk ji karbidestên asta bilind dikare sizayên herî giran bi xwe re bîne. Li gor wê dîtinê, rêber ji asta civak û siyasetê hin qas bilindtir e ku tu kes nikare heta kiryar û biryarên wî hilsengîne. û ji ber ku mijara "rexne ji rêber" li gel wê bingeha felsefeya siyasî ku sîstema Wilayetê Feqîh ya Îranê daniye hev nagre, kes an her aliyê ku ji sînorê xwe derbas bibe û rexneyek piçûk jî ji karê rêber bigre, zehmet e bikare bi serbestî li Îranê bijî.

Ji rexneyên siyasî bi der, heta kesên ku di warê olî de hevkûfî rêber in an hê ji wî di astek bilindtir de ne, dema boçûnek cuda ji ya rêber tînin rojevê, dikevin ber şûrê tolhildana rêjîmê. Di pratîkê de Komara Îslamî Weliyê Feqîh heta ji asta wî ya olî jî bilindtir kiriye û bi kiryar ev pîvanên ku bi xwe jî danîne binpê dike. Qedera mezin Ayetullahên ku heya niha riya xwe ji ya rêberê olî veqetandine, li ber çava ye. Her çend yek ji pîvanên bingehîn ên ola şîe, bi navê "El nesîhe li eyîme el Muslimîn", riya rexneyê ji rêber û desthilatdaran vedike, lê Komara Îslamî çi gav ev pîvan birêve nebiriye. Çarenûsa mezin Ayetullahên mîna Muntezirî ku di demekê de tenê hêviya Xumeynî bû, her bi rexneyek piçûk ji rêber wisan reş bû ku jiyana normal a rojane jî ev bi sala ye ku jê hatiye talkirin.

Lê babeta rexnegirtin ji karbidestan, îsal bi hêceta pêşbirkê ya hilbijartina serokkomar, bi awayek cuda kete rojevê. Ev pêvajoya nû, bi hemû kêmasiyên xwe ve, mijara rexnegirtin û bas ji kêmasiyan hinekê fermî kir. Her çend tu aliyan ne xwest û ne jî wêra rexnê ji sîstem an ji rêberê olî bigre, lê her ew gilî û gazindeyên ku ji serokkomar û karbidestên din dihatin kirin, bes bûn heya şanogeriya hilbijartina îsal hinekê ji ya demên berê cuda bike. Her ev rexneyên piçûk û serdevkî bi xwe têra hindê kirin ku bi awayekî rasterast rola Xameneyî di pirsgirêk û kêmasiyên welat de pitir bikeve rojevê. Ji ber wê yekê bû ku Xameneyî pir zû li hember wan rexneyan de dijkiryar nîşan da. û ji bo ku ev pêvajo bêhtir perdeya li ser kêmasî û xirabiyên ku ew bi xwe jê berpirsyar e hil nede, Xameneyî pir eşkere ji dezgehên xwe yên ragehandinê re xwest ku êdî bi wî awayî tevnegerin.

Di encama wê helwêstê de, berpirsên ewlekariya rejîma Komara Îslamî, ev demek e li pey hev gefan dikin ku tu kes an alî zêdegaviyan neke û pêvajoya rexne û gazindeyan bi dawî bînin. Pêvajoya bêdengkirina rexnegiran tu gav nesekiniye, lê bi gotin û îşaretên Xameneyî re, ev demeke ji caran pitir tê meşandin. Her di wan çend rojên dawîn de ku medyayan basî bersiva bi serve "nerm" ya rêberê Komara Îslamî ji "rexneya" xwendekarê genc re dike, rêberê çeng bi xwîn, gefa cezayê giran ji rexnegiran girtin û got ku karê ew kesên gazindeyan ji pêvajoya hilbijartina serokkomariyê digrin "curma mezin"e.

Dosya mafê mirovan di bin siya Komara Îslamî de hin qas bi tundûtûjî û îşkence û cinayetan hatiye dagirtin ku rêxistinên parêzerê mafê mirovan hema ji îşaretek piçûk ya rêberê rêjîmê jî nigeran in. Lewma dema Xameneyî di bersiva rexnegirên nava desthilatê de, karê wan şubhande curmek mezin, ji her alî ve alarma tehlîkê vê ket. Kargêrê Amnesty International (Efûya Navneteweyî) ji bo karê herêmên Rojhilata Navîn û programa bakûrê Afrîqa, "Malcolm Smart" li hember gotinên Xameneyî de dijkiryarek tund nîşan da û got: Ev gotinên Ayetullah tê wê manayê ku Îran dijkiryara aştiyane ya siyasî weke sûç dinirxîne. Efûya Navneteweyî xembariya xwe li hember wê helwêstê nîşan da û dubare eşkere kir ku Komara Îslamî bi hêceta parastina ewlekariya paşî hilbijartinan roj bi roj zexta li ser xelkê û binpêkirina mafê mirovan zêdetir dike.

Lê pirsa xwendekarê law çi qas ji Xameneyî nexweş hatibe û encamên ku ji vê pirsê derkevin çi bin, êdî tilisma meşrûiyeta rêber û nirxên Komara Îslamî qelişiye. Rêjîm niha weke golekê ye ku lêvar jê zede bûne û her pêlek dikare bi xwe re dîwarên ragirên wê biherifîne. Ji ber ku nîqaşên li ser kêmasî di karê rêber de, di demekê de têne rojevê ku rêjîm hem li hundirî welat û hem jî li asta navneteweyî bi aloziyên xurt re rûbirû ye. Dema ev alozî bibin babelîska bi hêz, wê demê meşrûiyeta rêber û ya Komara Îslamî wê bi hev re rabe esman, û zehmet e di ketina li pey wiha babelîskekê de, rêber û rêjîm bikaribin dubare rabin ser piyan.

***

# Sefera Erdoxan Bo Îranê û Nêzîkbûna Turkiyê Li Rejîma Komara Îslamî


Selah Muradî

Piştî lawazbûna peywendiyên navbera Tirkiye û Îsraîlê, Serok Wezîrê Tirkiyê, Receb Teyîb Erdoxan di rojên 27 û 28ê Cotmeha 2009an serdana Îranê kir.

Serok Wezîrê Tirkiyê berî wê seferê di hevpeyvîneke de digel Rojnameya 'Guardian' de, piştgirî li bernameya navikî a rejîma Komara Îslamî a Îranê kir û siyaseta welatên 5+1 di vê derbarê de bê wijdanane binav kir.

Tirkiye take welatê Îslamî yê endamê Nato û hevalbendê giring ê Amerîka di Rojhilata Navîn de ye. Ev helwêsta Erdoxan dikare di siyaseta Nato de li hemberî bernameya Etomî a Îranê valahiyê pêk bîne û herwiha bandora neyênî bike ser têkiliyên navbera Turkiye û welatên Ewrûpa û Amerîka.

Tirkiye di demekê de bo endambûn di Yekîtiya Ewrûpayê de hewlê dide ku dewleta Erdoxan zêdetir dixwaze ber bi aliyê cîhana Îslamê biçe. Ev jî yek ji wan sedeman e ku welatên Ewrûpayê li wergirtina Turkiyê wek endamek YEê nigeran kiriye.

Piştgiriya Tirkiyê li programa navikî a Îranê û rejîma Komara Îslamî û dewleta Ehmedînejad bi tevahî digel siyasetên Yekîtiya Ewrûpayê û nirx û bihayên vê yekîtiyê di warê demokrasî û mafê mirovan de dijber û ne teba ye.


Rejîma Meleyan bixwe digel pirsa neçareserkirî a Kurdên Îranê rûbirû ye û naxwaze çareserkirina pirsa Kurd li Tirkiyê bandora rasterast li ser Kurdên Îranê bike

Tirkiye nikare ji rejîmeke dîktator û serkutker ku li dijî hemû bihayên Rojavayî ye, piştevaniyê bike û di heman çaxê de çaverê be di Yekîtiya Ewrûpayê de wek endam bê wergirtin.

Erdoxan di wê hevpeyvîna xwe a digel Rojnameya 'Guardian' de, rasterast Îsraîlê bi wê yekê tawanbar dike ku dixwaze Îranê ji holê rake û bi vî awayî piştgiriyê li siyaseta Komara Îslamî bermaberî Îsraîlê dike. Heta diçe siyaseta Tirkiyê ji siyaseta Komara Îslamî nêzîk dibe. Nêzîkbûna Tirkiyê digel rejîma Meleyên desthilatdar ên Îranê, bi heman radeyê wî welatî ji Îsraîl û welatên Rojavayî dûr dixe.

Dewleta Erdoxan hinek hewl bo çareserkirina pirsa Kurd li Turkiyê dest pê kiriye û nêzîkbûna vî welatî li rejîma Komara Îslamî bandora neyênî dike ser wî welatî. Rejîma Meleyan bixwe digel pirsa neçareserkirî a Kurdên Îranê rûbirû ye û naxwaze çareserkirina pirsa Kurd li Tirkiyê bandora rasterast li ser Kurdên Îranê bike û wan bo bidestxistina mafên neteweyî ên xwe han bide.

Turkiye di navbera ragirtina mîrata Ata Turk û nirxên Îslamî ên cîhana Îsalmê de û endamebûn di Yekîtiya Ewrûpayê û wergirtina nirx û bihayên demokratîk û mirovî de helwêsta xwe yekalî ne kiriye. Hilbijartina cîhana Îslamê û dostîniya digel rejîmên dîktator ên Îslamî wek Komara Îslamî a Îranê ji aliyê Tirkiyê, dibe sedema pêkhatina astengan li hemberî pêvajoya demokratîzasyona Rojhilata Navîn û herwiha çareserbûna pirsa Kurd di vê herêmê de. Ger Turkiye berevajî wê rewşê kar bike, dikare bibe alîkareke xurt û bihêz yê cihgirbûna aştî û demokrasiyê di Rojhilata Navîn de.

## Mafê Mirovan

**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**



# Rola Mafê Mirovan Di Siyaseta Dereve De

**Alavên dariştina siyasetê**

Dewlet alevên cur bi cur bo banordanîn li ser 'siyaseta' dewletên din bikar tînin. Ew kerese jii "daxwazek dostane" hetanî dagirkirina ax û xak tên guhartin. Di navbera ew du (2) cemserên dij hev de gellek rêyên din hene. Rehmetî Evan Luard, dîplomat û lêkolerê Birîtanyayî derbarê wan rêyan lîstek amade kiriye ku li jêr dê bikeve berbas:

***Rêyên mumkin***

Yek ji rêyên kevnar û gellek giştî nêzîkbûna dewleteкê bi dewletek din bi rêyên nihênî, kanalên dîplomatîk "Dîplomasiya bê deng" e ku şêwazek kilasîk e ku dewletên cîhanê bi dirêjahiya dîrokê bi bihev re ketine danûstandinê.

Ew yek girêdayî bi şêweya nirxandina dewletan e ku pirsa mafê mirovan bi awayê eşkere bas bikin yan bi tenê ligel dewleta ku pêwendî bi wê re hene.

Carna bo dewletan hêsan e pêşniyarên çaksaziyê cîbicî bike, ger ji dest çûna abûrê wê nekeve tehlûkê.

Ji aliyekî din eşkerebûn an tirsa eşkerebûna dewletê dikare wê tûşî kiryaran bike. Dewlet gelek caran li hember rexneyên rojnamevan û perlemanteran dibêjin ku dewlet mijûlî karkirinê li ser pirsa mafên mirovan e.

Ji ber hegerên eşkere ew ragehandin nikaribin bên erê û teîdkirin. Ewa girêdayî bi şans û bext e, ger kesek bixwaze bi wê pirsê bawer bike an ne. Ger wezîrek ku îdîa dike giringiyê dide mafên mirovan bi awayê dostane digel nûnerê dewleta din bas bike zêdetir cîhê baweriyê be. Heta rêxistinên ne dewletî yên wek Efûya Navneteweyî jî hemû carê bi awayê eşkere kar nake û gellek caran "dîplomasiya bê deng" bikar dibe. Faktora bikêr ewa ye ku çi metodek bo behre wergirtina herî zêde hatiye bikaranîn.

Yek ji rêyên giştî hewldan bo bidestveanîna alîgiriyê ji dewletên din e. Helwêsta hevbeş gelek li helwêsta yek alî bi kêrtir e. Welatên wek Norwêj, Swêd, Danîmark, Finland û Holanda û Kanada hertim rêyeke hevbeş derbarê pirsa mafê mirovan peyda dikin.

Welatên Skandînavî bi awayê hevbeş derbarê pirsa apartaydê li Afrîqaya Başûr helwêstê xuya dikin.

Di hember de dewleta Holanda hewl daye ku piştgiriyê ji welatên Konseya Ewropa werbigire ya ku dixwaze pirensîb û siyaseteke derve ya hêvbeş hebe. Berjewendiyeke din a helwêsta hevbeş di wê çendê de ye ku welatek tenê nakeve hember dewleta binpêkerê mafê mirovan û pêwendiyên wê nakevin xeterê. Lewma ew cure "dabeşkirina taliyan" belkî bi kêrtir be.

# Nûciwan, Samana Netewî û Goriyên Totalîtarîzmê



Arif Nadirî

Rejîma Komara Îslamî a Îranê her di destpêkê de berevajî rejîmên kilasîk û dîktator ku hewla perawêzxistina xelkê dane, gişt cehd û hewla wê ew bûye ku xelkê beşdarî bûyeran bike, lê beşdarîkirina han nayê wateya beşdarbûna wan di pêkhata desthilatê de û bexşîna kesayetî û berpirsyarî ji bo takekes û komên civakê, belku bi wateya bikaranîn û bi xizmetgirtina hest û baweriyên olî û ramana wan a siyasî ji bo sepandina tirs û xofê bo ser xelkê ye. Da ku bikaribe ji vê rêyê ve bi destê beşek ji xelkê, beşek din ya gel ji nav bibe yan wan bêdeng û tepeser bike.

Di halekê de ku di Îranê de arteş hebû, lê Sipaha Pasdaran a Şorişa Îslamî di Nîsana sala 1980'an de li ser biryara Xomeynî hat damezrandin û piştre di Çiriya Pêşîn a hemen salê de li ser daxwaza Xomeynî Hêza Berevaniya Besîc bi navê "Besîcê Mustezefîn" hat avakirin. Saziyek ku Xomeynî wek erteşa 20 milyonî bas lê dikir. Di sala 1996'an de yasaya pêkhatin û pêşketina Besîcê Xwendekarî ku pirojeya wê ji aliyê Wezareta Perwerde û Hêza Parastina Besîc ve hatibû darêtin, piştre ji aliyê Meclîsa Şêwra Îslamî a Îranê ve hat pejirandin. Gelale û gavek ku bi liberçavgirtina rastiyan û dukomentên berdest, bi wateya mîlîşiyakirina zarokan e. Çimku di serdemê 8 sal şerê navbera Îran û Îraqê de, li gor serhejmariyên rejîma Îranê bi xwe, bêhtirî 550 hezar şagird ji rêya saziya Besîc ve ber bi meydanên şer hatin şandin. Di nava vê hejmarê de, 36 hezar kes hatine kuştin û winda bûne, zêdeyî 2 hezar û 853 kes kêmendam bûne û zêdetirî 2 hezar û 433 kes jî ji aliyê arteşa Îraqê hatin êxsîrkirin.

Ji aliyekî din ve, rejîma Îranê roja 30ê Çiriya Pêşîn, roja mirina Husên Fehmîde, xwekujê 13 salî wek 'Roja Nûciwanan û Besîncê Xwendekarî' diyarî kiriye û propagandaya vê yekê dike ku divê nûciwanên Îranê karê Husên xwe re bikin hêma û sembol. Di vê derbarê de rejîma Îranê bi rêyên cur bi cur wek dana îmtiyazan û heta zext û givaş û gevan kariye 4 milyon û 600 hezar şagirdên xwendingehan di saziya Besîc de navnivîsî bike û bike endam. Kiryarek ku li dijî pirensîpên navnetewî tê hesibandin.

Di halekê de ku li gor Konansiyona Navnetewî a Mafê Zarokan, nemaze madeyên 19 û 38, endamkirin û beşdarkirina zarokên jêr 18 saliyê di navendên leşkerî û mîlîşiyayî de qedexe ye. Herwiha civaknas vî karî dixin rêza kiryarên tundûtûjî li dijî zarokan. Çimku hem pisporên warê perwerdehî û hem civaknas bawer in kiryara han tê wateya berhemanîn û geşekirina tundûtûjiyê di nava nifşekê de ku desthilat û birêveberiya civakê digire stûyê xwe.

Li gor lêkolînên 'Navenda Steratejî û Lêkolîna Entrenasiyonal' li Waşîngtonê, rêxistina Besîc 900 hezar kes hêza ektîv û çeleng û 300 hezar endamên ne çalak heye ku beşek zêde ji dahata welat ji bo wan jî tê terxankirin. Li gor yasaya çarem a pêşdebirinê, divê salane 400 milyar tûmen ji bo hêza Besîc bê terxankirin ku di sala 2009'an de, budceya Hêza Besîc bo 45 milyar û 238 milyon tûmen zêde bûye.

Pêvajoya asayî û normal eva ye ku gişt zarok di hemû welat û sîstemek perwerdeyê de bi awayekî demokrat û dûr ji çanda mirinperestî û şer bên perwerdekirin û bihayên mirovî û aştîxwazane ku çanda bihev re jiyankirin û lêborînê ye, bi wan bê nasîn, da ku bibin xwediyê raman û nerînek mirovî û pozetîv li hember takekes û gişt mirovahiyê.



Rejîma Komara Îslamî a Îranê zarok wek amûr û alavekê dizane ku hewce ye li gor hez û îdeolojiya rejîmê bilivin û stûxwarê biryarên wan bin daku ji bo armancên xwe bikar bînin

Lê rejîma Komara Îslamî a Îranê zarok wek amûr û alavekê dizane ku hewce ye li gor hez û îdeolojiya rejîmê bilivin û stûxwarê biryarên wan bin daku ji bo armancên xwe bikar bînin. Mîkanîzma sereke a vê armancê jî Besîca Xwendekarî ye. Saziyek ku tê de mêjiyên zarokan dişon û wan bo encamdana kiryarên tundûtûj û qirker hay didin, heta wan digihînin vê baweriyê ku karê xweteqandinê jî bikin. Ji xeynî vê yekê ku wan bo kar û barê sîxorîkirin di hundirê malbat û civakê de hay didin û ava jî dibe sebeb ku asta baweriya civakî jêrde biçe. Herwiha endambûn di hêza Besîc de ku tayek û beşek ji Sipaha Pasdaran ku hêzek terorîstî ye, hişyarane yan ne hişyarane tê wateya hevkarîkirina terorîzmê.

# Ji Sedî 51 Ya Madeyên Bêhişker Ên Cîhanê
## Di Welatê Îranê De Tê Bikaranîn

Rêxistina Netewên Yekbûyî ragihand, di sala 2008'an de 14 ton Heroyîn û 450 ton Tiryaka berhemhatî ya li welatê Efxanistanê di Îranê de bi kar hatiye û ew welat li kêleka Rûsiya, di pileya herî jor ya lîsteya mezintirîn welatên bikarîner ên madeyên bêhişker di cîhanê de cih girtiye.

Li gor rapora "Radio Farda", buroya xebat li dijî madeyên hişber û tawanan ser bi Rêxistina NY di rapora xwe de ragihand, Îran yek ji wan welatan e ku digel cidîbûna pirsgirêka bengdariyê di cîhanê de rûbirû ye.

Li gor wê raporê, 15 milyon û 400 hezar kes di cîhanê de bi madeyên hişber tûşî bûne û nîva madeyên hişber ên cîhanê di welatên Îran û Rûsiya û Ewropa de tê bikaranîn.

Herwiha welatê Îran û Rûsiya her yek ji wan 15 ji sedî û Ewrûpa 19 ji sedî û Çîn 12 ji sedî a madeyên bêhişker ên cîhanê bikar tînin.

Di wê rapora amajekirî de hatiye, li wî 15 milyon û 400 hezar kesî ku li madeyên hişber mifahê werdigirin, 11 milyon û 300 hezar kes Heroyînê bi kar tînin û yên din Tiryakê bi kar tînin û 42 ji sedî a bikarînerên Tiryakê di Îranê de ne.

Armanceke siyasî li pişt zêdebûna bengdarî di Îranê de heye û rejîma Komara Îslamî a Îranê wek rejîmeke



tepeserker û ne rewa bo ji rê derxistin û ji navbirina civata ciwanên Îranê, ji madeyên hişber mifahê werdigire û girtîgehên Îranê yek ji cihên sereke ên belavkirina madeyên hişber in.

## Komara Îslamî A Îranê Dixwaze Çend Gundên Urmiyê Ji Nav Bibe



Kurdistanme dia: Nûçegihaniya Kurdistan ragihand, di çend salên borî de rejîma Komara Îslamî a Îranê bi hêceta çêkirina bendava Noşanê li geliyê Bendê, çend gundên wê deverê ji holê rakiriye, çend gund ji wan ev in: Zêrîxan, Mîrava, Dolepêsan, Xirê û Hilorî ku bi tevahî hatine wêrankirin. Niha rejîma Komara Îslamî a Îranê dixwaze bendavekê a jî li devera Gelî Berandêzê çêbike ku bi sedema çêkirina wê bendavê çend gundên devera Mirgewer û Berandêz ser bi bajarê Urmiyê ji holê radibin.

Herwiha di salên borî de rejîma Îslamî a Îranê gundê Cêrmê bi sedema wê yekê ku pêşmergên rêya rizgariya Kurdistanê hetû çûnê wî gundî dikin şewitand.

Hêjayî gotinê ye ku siyaseta ji holê rakirina gundan ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê di deverên Soma û Biradost û Nazliyê de jî birêve diçe.

## Ji Sedî 80 Ya Daxwazên Berdanê Piştî 5 Sal Jiyana Hevbeş Tê Kirin



Li gor lêkolînekê ku malpera "farda" ji rêya Zanîngeha Biheştî a Tehranê encam daye, hat eşkerekirin ku ciwanan seba vê yekê ku pêş zewicînê nasiyariyên pêwîst ji taybetmendiyên exlaqî, riftarî, çandî û... ji hevdu nînin, zû ji hev vediqetin.

Xesarnasê civakî Dr. Mecîd Ebherî di vê derbarê de wiha axivî: Encama wan lêkolînên ku li ser ji sedî 80 ya wan jin û mêran hatiye kirin ku piştî 5 sal jiyana hevbeş daxwaza berdanê kirine, derdixe holê ku sedema cudabûna wan ji hev vedigere bo nebûna zaniyaiyên wan ên hewce ji kesayetiya hevdu.

Vî mamostayê zanîgehê û xesarnasê civakî herwiha zêde kir: Kurtbûna heyamê hevnaskirinê berî pêkanîna jiyana hevbeş, giringîdan bi fakartên aborî û rûyekî di hilbijartina hevjîn de, giringî nedan bi wekhviyên kultûrî, aborî û olî yên navbera hev û kêm ezmûnî di jiyanê de; ji sedemên sereke ên jihevcudabûna jin û mêran li Îranê ne.

Li gor serhejmariya Saziya Tomarkirina Nasnameyan a Îranê, di sala borî de 51 hezar û 48 xalên berdanê di navbera mêrên jêr 30 saliyê de û 72 hezar û 87 xal jî di navbera jinên jêr temen 30 saliyê çê bûye.

***

## Di Heftiyekê De 3 Heta 4 Hezar Kes Li Îranê Tûşî Çewba Berazan Dibin



Wezareta Tendurustî Derman û Perwerdeya Bijîşkî a rejîm Komara Îslamî a Îranê ragihand, di heftiyekê de 3 heya 4 hezar kes li Îranê tûşî şewba curê A dibin.

Li gor rapora malpera Farsî a "BBC", Wezîra Tendurustiyê dawaz ji saziya Perwerde û Hînkirinê kir, ew xwendingehên ku têde şewba Berazan belav bûye, girê bidin.

Li gor gotina Wezîra Tendurustiya Komara Îslamî, nîva kesên tûşbûyî bi Şewba Berazan di bin temenê 24 saliyê de ne.

Herwiha li gor gotina Sekreterê Civata Pisporên Navxwe ên Îranê heta niha 32 kes li Îranê seba tûşbûn bi Şewba Berazan jiyana xwe ji dest dane.

Niha werza şewba mirovî ye û eva jî metirsiya belavbûna zêdetir a şewba Berazan di cihên giştî de çend qet zêde kiriye.

Di Parêzgehên Kirmaşan û Azerbaycana Rojava ên Kurdistana Îranê de jî, kesên tûşbûyî bi şewba Berazan hatine dîtin. Herwiha di Kirmaşanê de çend xwendingeh bi vê egerê hatine daxistin. Îfûnetkirina siyan, îshal û zikêşî û werişîn jî nîşaneyên Şewba Berazan in.

## Diyardeya Jin Bi Jinkirinê Li Devera Seqizê Hêj Berdewam E



Li gor rapora Navenda Nûçegihaniya Seqizê, diyardeya jin bi jinkirinê li devera vî bajarî hêj nehatiye ji holê rakirin û niha jî beşek zêde ji akinciyên gundan û heta rûniştvanên hundirê bajarê Seqizê bi awayekî rasterast û ner asterast vê diyardeyê diparêzin û dimeşînin.

Karnasên bilind ên warê civaknasî di bajarê Seqizê de derbarê vê diyardeyê bo Navenda Nûçegihaniya Seqizê eşkere kir ku sedema ji holê nerabûn û heta xurttirbûna diyardeya jin bi jinkirinê, di gava yekem de vedigere ser eşîrbûna beşek ji pêkhateya civaka kurdwarî û hebûna dab û edetên kevn û neşaristanî, ji aliyek din ve seba jordeçûna xerca jinanînê û keçzewicandinê, hinek ji malbatên xizan û hejar wisa baş dizanin ku bo kêmkirina xercên dawet û govendê û hevdem jêrdeanîna daxwaziyên malbata bûk û zeva, penahê bo vê diyardeyê bibin.

Wî civaknasî herwiha da zanîn: Ezmûnan nîşan daye ku piraniya kesên ku bi vê metodê dizewacin, piştî heyamekê tûşî pirsgirêkan dibin û heta ji hevdu diveqetin û kêm kes hebûne ku bi vê rêyê jiyanek bextewer û serkevtî hebin. Lê cihê xemgîniyê ye ku hêj beşek berçav ji malbatan vê diyardeyê dimeşînin.

# TABÛ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Tabû, wekî baweriyên olî ku destûr nade mirov dest bide hin mirovan, ajelan û heyberan an jî bikaranîna wan. Ango ew tiştê ku tên hêvişandin û parastin.

Çi dibe bila bibe, tiştên ku wekî tabû hatine/têne parastin, ji hêla hin mirovan ve wekî tabû jî têne pejirandin.

Ji do heta îro, çi nirx û payedariyên ku mirovahiyê di hişê xwe de sêwirandine, wekî pîrozmendî hatine pejirandin. Digel ku hemû tabû ji hêla mirovan ve pêk hatine jî, dîsa mirov bi xwe bûne dîl û beniyên van pîrozweriyan.

Mirov, pêşî ji tiştên ku nayên nasîn û têgihîştin ditirse. Bi wê tirs û xofê re di hişê xwe de tiştên tune disêwirîne. Hin bi hin bi wî tiştê ku sêwirandiye bawer dike; li cîgeheke pêpejn negihêj diedilîne û peyre jî radigihîne mertebeyeke pîrozwer. Bawerî û tabû hêviya kes û civakên ku di hewm û heyamên tarî de dijîn û di gewer û neqebên nepenî de li tunebûnê dihesilin e. Kesên ku xwe li deriyê pîrozweriyê digirin, an xwe tune dikin an jî xwe tenê dibînin.

Xerca hîmê pîrozweriyê bawerî ye. Bawerî jî bi saya hêvî û qinyata ku di dilê mirov de pêk tê, li ser piyan dimîne. Hêvî û qinyat xislet û xasmatiyên civakên paşmayî ne. Taybetiyên civakên paşmayî yên sereke acizî û bêzarî ye. Acizî û bêzarî, bêtir xwe li civakên bêhêz û bêrêz digirin û di mirovên xeşîm û nezan de digerin. Kan, mak û jêdera hemû nezaniyên jiyanê bawerî ye. Bawerî zêdetir mirov û civakên xeşîm û nezan arasteyî heyîn û heyberên pîrozwer dike. Û mirov û civakên nezan jî her gav di baweriya hebûnên pîrozwer de winda dibin û dixeriqin.

Tabû, di hizra mirov de wekî nirxekî ezîz, hebûneke qenc, hêjahiyeke delal tê sêwirandin. Her wiha ew wekî xêrdarî û bêrdariyeke miqedis û homanwer jî tê xemilandin û nîgarkirin. Bêşik mirovên ku bi bîr û baweriyeke xurt, xwe li vê pîrozweriyê digirin û bi hestên pak û paqij an jî liv û tevgerên necîb û nişmî arasteyî wê dibin, her gav xwe şad û bextewar dibînin. Belê gelek caran pîrozweriyên nezîh û bêrî li alavên xwînî û kujende dadigerin û di destê mirov de dibin hût û cinawirên heftserî. Pêşî êrîşî mirovên ku bi wan dihemilin dikin; serê wan hildiqetînin. Peyre jî li ser hemû mirovên ku dibin hikm û bandora wan de dimînin, dizivirin. Û nola ruhstînên çavsor û çavbirçî, wan ji berêv de dadibelihînin.

Tabû, her çiqasî wekî payedariyeke berz û bilind were dîtin an binavkirin jî, ew timî wekî taybetiyeke civatên paşmayî, paşverû û hoveber hebûna xwe dikudîne. Mêjer û rêjeya pîrozweriyê çendî bilind û zêde dibe, hilberîn, nûvedanî, pêşketin û serkeftina civakê jî ew çend kêm û lawaz dibe. Lewre ew perdeyeke reş û tarî ya ku bi ser hişmendiya mirov de hatiye dakirin e. Bêtir dişibe bendeke bilind a ku di navbera mirov û azîneyên zanyariyê de hatibe danîn. Û ev bend jî zû bi zû neyê hilweşandin. Bi rastî heta ku ew perdeyên reş û tarî ji ser hizra mirov û civakê neyên hilanîn û ew bend û dîwarên stûr neyên rûxandin, ne mirov dikare bi awayekî rexnegir têkilî van tabû û perestiyên bêhavil û bêbinyat bibe û ne jî civak dikare wan peyker û senemên ku di hişmendiya mirovahiyê de hatine raçikandin, birûxîne.

Çi dibe bila bibe, ew tiştên ku wekî pîrozmendiyekê têne dîtin, gava ku bi awayekî zanistî û zaneyane were dahûrandin, dê baş bête fêmkirin ku tu car nabin hêjahiyeke ku mirov jidil û can jê hez bike an qedr û qîmetê bidêyê... Ji lewre tabû, di rastiya xwe de an wekî tiştekî ku mirov jî ditirse, dibizde û dipelikîne; an ji wekî mertalekî berjewendiyên rojane yên ku ji hêla mirovên durû, kone û hîlebaz ve tê bikaranîn, parastin û pesinandin e. Ji bo wê, hewcetiya mirov û civakên ku van pîrozweriyan di hiş û weşê xwe de pêk tînin, zêde bi rexne û geşedaniyên nû û nûjen nîn e.

Mirov dibin civak dibin, di her dem û domanê de di bin holika asîmên de ji xwe re senem û tabûyên zix û destnedayî afirandine. Û ew tabûyên bêxêr û bêkêr ên ku di hişmendiya mirov de têne parastin û perestin, rasterê dibin pîrozweriyên ku jiyana civakê dîl û radest digirin jî. Çimkî tabû û perestayiyên civakî her car wekî taybetiyên bindestî û benîtiyê, hebûna xwe didomînin. Tabû zêde nikare bi dora takekes û civakên hişdar û aqilmend bikeve. Lewre kes û civakên zaneyane, bi tedbîr û tevdîr tevdigerin û zêde nirx û îtibarê nadin baweriyên misoger û mayînde. Ji bo wê, bawerî û tabû, bêtir xwe li ferd û civatên nezan û paşmayî digirin. Jixwe cih û warên nezaniyê her wiha qadên pîrozweriyê ne jî. Daxwaza mirov a pîrozweriyê ji razîbûna û pejirandina çarenûsê tê û pejirandina çarenûsê jî nezaniya mirov dizê.

Serwerên zane û kone dixwazin her dem ji bo xwe warekî pîrozwer ava bikin. Ji bo wê ew berî her tiştî berê xwe didin kom û komiçkên xeşîm û nezan. Pêşî di hişê wan de qad û cîgehên reş û tarî ava dikin û peyre jî wan ber bi jiyaneke mirinrêj û kujende vedikin. Soxî, wan dikin goriya berjewendiyên xwe yên rojane.

*Kaniya Helbestan*

## Şeva Pêxas

**Hesen Şucaî**



Şeva pêxas leşê gelî û
newala vedişart
û pirpiroka sipî gêj li
qêrîna reş
di nav çiyayên rojava
bi dengê sor dikir gazî,
"neçe avê!"
neçe avê
şeve baranek bêsitar
li jor da tê
keça bêmal
bibe xudan
neşkêne ba
cêrê ser milê te
biparêze
nerevîne xew çavên te
çima ku vegera sibê
vebe deryê zîndana min
tenê bi çavê te rênasim.

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

**Beşa 4**



**Çiya Mazî**

Ev gotin, eslê wê dibe ku Tirkî be lê di Kurdî de jî bi cîh bûye û êdî tu kes nikare derxe, an mirov dikare bibêje, Kurdî ye jî. Heta bi awayê *"qiz qereçi xatun olmaz"* jî li hin deveran di nava Kurdan de tê bikaranîn. Herwiha mirov dibîne ku gelek gotinên Kurdan di Tirkî de bi cîh bûne û êdî mirov nikare derxe, hatine ecibandin.

Dîsa wekî gotina;

*"pêşî êmek dû re dêmek"*

Û wekî :

*"Dims û pekmez farketmez"*

Van gotinana jî du ziman tevlihev kiriye.

Di gelek pirtûkên Yaşar KEMAL de gotin û biwêjên ku mirov dibêje eslê wan Kurdî ne cîh digirin. Di pirtûka Yaşar Kemal-Sebahattin Eyüboxlu ya bi navê "Ezman Şîn Ma"(Gokyuzu Mavî Kaldi) de jî gelek gotinên ku koka wan Kurdî nin hatine bikaranîn û wekî gotinên pêşiyan yê Tirkî hatine nîşandan. Hinek jê pir diyar in , lê hinek him di nava Kurdî de û him di nava Tirkî de, mirov dikare bibêje ji sed salî virde têne bikaranîn. Ev tevlihevbûna çandê ye. Li gor rewşa civaka Kurd û Tirk û serdestiya sedsalan, tiştekî xwezayî ye.

Balkêşiyek vê pirtûka Yaşar Kemal û gotinên di navê de ne heye ku, ev gotinana ji devê gelê Anatoliya navîn jî hatine girtin û pirên wan di pirtûkên wekî fermî de tune ne.

Mînakên Ji vê pirtûkê:

*Agacın kûrdû îçînden olûr(Kurmê darê ji hundurê wê çêdibe).*

Di Kurdî de: *Kurmê darê ji darê ye.*

Mirov dikare bibêje ku ev ji Kurdî hatiye girtin, ji ber ku ew pir xweş li zimanê Kurdî tê. Lê di Tirkî de hinekî bê xwê ye. Dîsa mirov nikare bibêje ev ji sedî sed ji Kurdî hatiye an koka wê Tirkî ye. Mînakên Tirkî î li jêr jî xuya dike ku çanda Kurdî û ya Tirkî ji hevdû bandor girtine. Ev jî tiştekî xwezayî ye. Lê gelek gotinên ku di Tirkî de têne gotin qet di Kurdî de tunene û gelek gotinên Kurdî jî di Tirkî de nayên gotin. Ev jî xuya dike ku her yek çandeke cuda ye.

Gotinên pêşiyan bi piranî ji ecibandinê têne bikaranîn. Mînak li nava Bajarê Mêrdînê Kurd û ereb bi hev re dijîn. Ne gengaz e ku mirov sînorekî stûr têxe nava gotin û biwêjên wan. Çend gotinên Erebî hene, dibêjin:

" *selam icibil kelam, kelam icibil petêx".*

*(silav peyvê tîne, peyv jî petêx tîne) .*

*an*

*"Ji maran û himaran hey mafî xisaran"*

*( ji maran xisara keran tuneye)*

pirê gotinan xwedî çîrok în jî. Di dû çîrokekê an qewimînekê hatine holê. Wekî çîroka vê gotina li jor: yek di ba petêxfiroş re dihere û silavê dike, piştî silavê peyv xweş dibe û dûre petêxekî dixwaze. Petêxfiroş jî bê pere didê. Lê roja duduyan û sisiyan jî wisa dom dike. Roja çaran petêxfiroş silava wî venagerîne. Xwediyê silavê dibêje "çima?". Petêxfiroş dibêje "silav peyvê tîne peyv jî petêx tîne".

**Ev gotin êdî di nava Kurdan de jî tê bikaranîn. Heke ne bi wî awayî be jî Kurd an netewên din, gotinên wiha li gor zimanê xwe werdigerîne an gotineke wiha diafirîne. Ev rêbaz tiştekî xwezayî ye.**

**MÎNAKÊN GOTINÊN PÊŞIYAN BI TIRKÎ Û LI HIMBER WAN YÊN KURDÎ**

Mînakên gotinên pêşiyan, yên him di pirtûka Yaşar KEMAL(gokyuzu Mavî Kaldı) û him di pirtûkên din yê Tirkî de, Gotinên nêzî çanda Kurdî ne û di Kurdî de têne bikaranîn jî ev in:

Tirkî: *Bıçak yarası onulur,dert yarası onulmaz.(Birîna kêrê tê kişandin (tamîrkirin), birîna derd nayê kişandin)*

Kurdî: *Xweş dibe dewsa xenceran, xweş nabe dewsa xeberan*

Tirkî: *Bir çiçekle yaz olmaz.(Bi çîçekekê nabe havîn)*

Kurdî: *Bi gulekê nabe bihar.*

Tirkî: *Cins horozu yumurtada öter.(Dîkê cins di hêkê de azan dide)*

Kurdî: *Dîkê çê di hêkê de azan dide.*

Tirkî: *Dağ ne kadar yüce olsa yol üstünden geçer.(Çiya çiqas mezin be jî rê di ser re derbas dibe).*

Kurdî: *Çiya çiqas bilin be, rê pê dikeve.*

Tirkî: *El eli yikar, iki el yüzü.(Dest dest dişo du dest rû dişo)*

Kurdî: *Dest destan dişo, dest vedigere rû dişo.*

Tirkî: *Abdalın karnı doyunca gözü papucundadır. (Zikê Ebdal têr dibe, çavê wî li sola wî ye)*

Kurdî: *Derwêş têr dixwe çavê wî li sola wî ye.*

Tirkî: *Ateş ile barut bir arada olmaz.(Agir û barud li ba hev nabin)*

Kurdî: *Agir û pîşo li ba hev nabin.*

Tirkî: *Demîr tavında dövülür.(Hesin di semaxa xwe de tê kutan).*

Kurdî: *Hesin bi germî tê tewandin*

Tirkî: *Mal bulunur can bulunmaz.( Mal tê dîtin can nayê dîtin).*

Kurdî: *Mal tê can nayê.*

Tirkî: *Otuz iki dişten çıkan otuzikı mahalleye yayılır. (Ya ji nav sî û du diranan derdikeve,li nava sî û du meheleyan belav dibe).*

Kurdî: *Peyva ket nav sî û sê diranan, dikeve nav sî û sê zimanan .*

Tirkî: *Tatli dîl yilanı deliğinden çikarır.( Zimanê şêrîn, mar ji qula wî derdixe).*

Kurdî: *Peyva xweş mar ji qulê derdixe.*

**DI GOTINÊN PÊŞIYAN DE HUNERA PEYVÊ Û WÊJEYÊ:**

Di gelek gotinên pêşiyan de hunerên cihê cihê xuya dibe. Ev jî ji wêjeya devkî parê distîne. Ji bo baş bêne fêmkirin û mayinde bimînin, bi hilbijartineke demdirêj, di gotinan de huner jî hatiye afirandin. Ev babet pir kûr û dirêj e. Hêjayî lêkolînên berfireh e. Lê belê emê tenê bi mînakine biçûk vê babetê rave bikin.

Şibandin: Ev jî ji bo gotin baş bêne fêmkirin û mayinde bimînîn hatiye bikaranîn.

Mînak : *Kincê kete ber pînan, serê kete ber şîretan kêrî tiştekî nayên.*

Di vê gotinê de seriyê mirovan bi kincên kevin hatiye şibandin.

Rêzbendî (kafiye):

Mînak: *Huner çek e, di bin çengê xwe ke, roja hewce bû veke.*

Mînakên bi vî rengî pir in. Ev cure huner jî ji bo fêmkirinê pir hatiye bikaranîn. Di gelek gotinan de rêzbendî, ne di dawiya gotinan de, lê di serî û navê de jî hatiye bikaranîn. Wekî gotina li jor.

Wezn û pîvana kîteyan: Hinek gotinên pêşiyan bi wezin û pîvan hatine gotin. Ne ku van gotinanê bi wezin, bi zaneyî hatine afirandin. Lihevanîn û hezkirina ji melodî û rêzbendiyê ew derxistine holê.

*"Ga -dim-re -çerm -di-mî-ne ; mêr-dim-re- nav di-mî-ne"* . (7+7)

Ev gotin hevdûdanî ye ango du gotinên bi hevre hatine gotin û bûne yek. Lê belê her yek bi wezin û ji (7) kîteyan pêk tê. Du mînakên din:

*" me-nêr- li- mi-rûz, bi-nêr- li- gu-rûz" (5+5)*

*" ça-vê- li- de-ri-ya, xwe-lî- li- se-ri-ya"(6+6)*

# Çîyayê Agirî an Jî Ararat



Paşa Amedî
pasaamedi@gmail.com

Çiya ji dinyayê re stûne, Ji mirov û heywana re tim stargehe, havîn û zivistanê jê re cihê nake an jî her demsalê de kana mîvana bihewîne.

Çîyayê Agirî an jî Ararat, ev çiya çiyayek agirpêje, pir teqyaye, hilm û nexweşiya xwe ji erdê avêtîye der, dor û hawirdorê xwe tijî kiriye, tim ciyê xwe fere kiriye, dewsa xwe de mexel hatiye.

Ev çiya çiyakek pir pîre destana gelek pir zane, şer û têkoşîna mirovan gelek dîtiye û şahid bûye, mezlûm û zaliman gelek nas dike, Ji merivê belengaz, mezlûm û heq xwazan re bûye stargeh û wan tim parastiye. Kî xwe avêtiye bextê wî, ew lê xwedî derketiye. Kî jêra bêbextî kiriye wana jî li ser axa xwe fetisandiye û xeniqandiye an jî def kiriye.

Li ser axa wî pir xwîn rîjiya ye gelek mirov hatine kuştin, kal û bav mirinin, zarok sêwî, jin jî jinbî mane… Çiyayê Agirî pir dilşewate neqayîle ku kezewa malbata an jî kesekî bişewite û li ser axa wî xwîn birijê, pir xemgîn dibe û diqehire.

Çiyayek pir mezin û bilind e, kul û derdên wî pir in, serê xwe tim tîk dike. Serê wî tûjike di gelek cîha de mexel hatiye kurê xwe yê biçuk daye kêleka xwe, ji xwe naqetîne û bi sebir dihewîne.

Kurê wî carna digirî, dibêje “Min berde, çima nahîlî ku ez bileyzim û herim gerê? Ew jî jêre wiha dibêje “Berxê min tu zarokê merivên pexîlî, pirin ê te bikujin ku tu jî herê ez ê çi bikim, tebat û hevalê min jî tu yî? ”

Ji çar gela re hakimtê dike û deng nade, tim difikre qey derdê wî heye. Bi ro radikeve û bi şev payê ye, lêbelê tim şiyar e.

Erê derdê wî jî heye û gelek pire, dil û madê wî jî kulle lêbelê kesek pê nizane, yek caran wexta ku di diqahire xwîn ji cegerê wî tê û davîje der yanê xwîna sor dike der, nexweşiya wî ne wek nexweşa ye, ji qahr û derdê merivan nexweş ketiye; ji pexîlî, hesûdî û şerê merivan. Neqayîle ku meriv bimre û were kuştin, ne meriv tenê kuştina heywanan jî, pir bi rehme û dilşewate.

Şev û roj serê wî tim bilinde, kumê xwe yê sipî tew da nayne, çekê wî dar û giyayê hêşinayê ye, êşligê wî belek e, şalê wî kesk e, di zivistanê de jî çekê û kirasê sipî li xwe dike, jêre ne sermaye. Bi ro radikeve bi şev jî li Erîwan, Idîr, Bazîd, der û dora xwe temaşe dike, pir xemgîne lêbelê pir bihîviye. Hîvîya wî ji xwedî heye ku rojek meriv, gel azad bibin û aşitî were nav merivan. Pîrek pir bi aqilmende, derd û kulê xwe ji kesî ra nabêje û bersiva kesê nade, nizanin ku ji bo çî ye? Nepeniyên wî hene tim vedişêre, zarokê xwe jî teme dike ku nebêje ji kesî re. Ji Kurdan pir hez dike, egît û şervanê Kurdan pir bihurmet û birûmetî xwedî dikir û lê xwedî derketiye.



Bi şev carna zarokê wî nahewe qayîle ku bilîze lêbelê dayîka wî nahêle, ji bona aş bûna wî çîrçîrokan, şer û çîrokên gelan ji kurê xwe re dibêje, carna jî zarokê xwe re dilorîne bi dengê xweşik.

## Ferhenga Celadet Alî Bedirxan Derket

**Agirî – Avesta -** Weşanxaneya Avesta li Stenbolê piştî ji 58 salan bi ser wefata wî, ferhenga mîrê kurmanciyê Celadet Alî Bedirxan bi serbilindî û kêfxweşî pêşkêş dike. Çapeke taybet ji Ferhengê re hatiye kirin, bi du awayan çap bûye.

Sînemxan Bedirxan, di pêşgotinê de li ser Ferhengê van agahiyan dide:

"Armanca vê ferhengê ew bû ku piştî belavbûna alfabeya latînî, derxistin û rawestandina kovara Hawarê, bibe pêdiviyek ji bo pêşveçûna zimanê kurdî û belavbûna vî zimanî li çar perçeyên Kurdistanê.




Ez dikarim bêjim ku yekemîn ferhenga kurdî-kurdî bû. Lê mixabin ji ber koçkirina bavê min û piştî koçkirina wî, astengî ketin nav jiyana me de, ev ferheng belav nebû heya niha..."

Ev ferheng ne wekî hemû ferhengên asayî bi yek beşî, ji ber wan kêmasiyan ferheng bi sê beşan hate çapkirin.

1. Beşa Yekem şeş tîpên (a-b-c-ç-d-e) Selah Sadallah
2. Beşa Duyem Ferhenga Celadet Bedirxan
3. Beşa Sêyem Ferhenga Kovara Hawarê

“Elfabêya Kurdî” jî ku dîsa di Hawarê de çap bûbû, wek pêşek cî girtiye.

## Berhemek Nû Li Ser Edebiyat û Hunerê

Derbarê edebiyat û hunerê” navê pirtûkek nû ye ku ji nivîsarên Karil Marks, Corc Lokaç, Antonyo Giramşî, Corc Tamson û Roza Lokzamborg pêk hatiye. Ev pirtûk bi zimanê Farsî jî hatiye wergerandin.

Nivîskarê hêja Şerîf Felah jî ew wergerandiye ser zimanê Kurdî (Kurmanciya jêrîn).

Pirtûk ji 144 rûpelan pêk tê û têde gelek bi zanistî û berfirehî basa wêje û hunerê dike.




## Navenda Wêje û Hunera Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê Tevlî Navenda Wêjan Bû

Navenda Edeb û Hunera Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê ku berê avabûna xwe ragihandibû û ji bo kar û xizmetên di warê wêje, huner û çanda kurdî dest bi kar bibû û li gorî şiyan û karîna xwe karî ye hejmarekî berbiçav ji nivîskar, rewşenbîr û hunermendên kurd ên Rojhilatê kurdistanê li dora xwe kom bike.




Lê niha bo xizmetên bêhtir di astek berfirehtir de piştî lêkolîn û gotûbêjan bi navendek din ya çandî û hunerî (Wêjan) re, biryar daye ku ji niha şûnde kar û çalakiyên xwe weke parek ji pêkhataya vê navendê (Wêjan) bidomîne û ji bo xizmetên pitir yên çandî, wêjeyî û hunerî ên kurdî gavên baştir bavêje.

agiri

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com**

# Cihwarên Dîrokî Yên Kela Qeban Li Makû Mijûlî Ji Navçûnê Ne

**Agirî – Makû:** Bi sedema xemsariya karbidestên rejîma Komara Îslamî a Îranê, mijûl e cihwarên dîrokî yên Kela Qeban li bajarê Makû ji nav diçin.

Nûçegihaniya Kurdistan di vê derbarê de diyar kir, ji aliyê Îdareya Mîratên Çandî ya bajarê Urmiyê ve tu giringî ji bo parastina Kela Qeban nehatiye dan û hikûmet jî tu hewlekê bo nûjenkirina wê kelê nade.

Herwiha hinek karbidestên rejîma Komara Îslamî a Îranê di wê derbarê de bi hevkariya çend kirêgirtiyên wê rejîmê mijûlî derxistin û talankirina cihwarên dîrokî yên wê kelê ne, ji ber vê yekê heta niha dehan cihên Kela Qeban li Makû hatine hiloşandin.

Rejîma Komara Îslamî a Îranê mizgeftek di kêleka wê kelê çêkiriye û hewl dide ku ciwanî û girîngiya wê kela dîrokî kêmreng bike. Hêjayî gotinê ye ku Kela Qeban di serdemê Şah Ebasê Sefewî de cihê berxwedana Kurdan digel desthilatdariya Sefewî bûye û piştre bi biryara Şah Ebasê Sefewî ew qele hat hiloşandin.


Dîmenek ji Kela Qeban li bajarê Makû

# Koma Muzîka Kamkaran Albumeke Nû Derxistin



**Agirî - Rûdawnet:** Koma Muzîkê ya Komkaran bi albumeke nû bi navê 'Dûr heta nêzîk' ketin nav qada hunera Kurdî. Hefteya borî rêûresmeke berfireh li Avahiya Muzîkê li Tehranê bo nasandina albuma nû ya Koma Kamkaran hat lidarxistin û Hoşeng Kamkar wek Serokê Koma Komkaran ew album pêşkêşî hunermend Ehmedriza Ehmedî kir.

Rêveberê Hunerî yê Koma Kamkaran Hoşeng Kamkar behsa rewşa muzîka Îranê kir û nerînên xwe wiha anîn ziman: "Min ji bo pêşkêşkirina menzumeyên Mewlana di 9 mehên borî de tu pere wernegirtiye û çêkirin û berhemanîna van corên albuman tenê bi evîn û hezkirina me ve girêdayî ye. Karkirin di rewşeke wiha de tenê ji ber dû sedeman e; yek evîn û dû dînatî (şêtbûn). Ji ber ku di rewşa niha ya Îranê de û bi sedema hebûna kopyeyên ku di înternetê de tên kirin, qet xerciyên berhemên wiha bo hunemrendan navegere."

# 15 Milyon Kes li Îranê Bi Xetera Bikaranîna Madeyên Bêhişker Re Rûbirû Ne



**Agirî – iranpress -** Berpirsê Navenda Xebat li Dijî Madeyên Bêhişker ya Komara Îslamî a Îranê Îsmaîl Ehmedî Muqedem, di hevpeyvînekê de digel Nûçegihaniya hikûmetî a 'MEHR' ragehand, 10 heta 15 milyon kes li Îranê bi xetera bikaranîna madeyên hişber re rûbirû ne. Wî karbidestê Komara Îslamî diyar kir, ligel vê çendê ku bikaranîna madeyên bêhişker xesara herî mezina cîvakî ye û gellek nigeranî di civaka Îranê de pêk aniye, lê tu xesar û diyardeyeke din a civakî tune ku bi qasê bikaranîna madeyên bêhişker endamên civakê bi xwe re bendewar kiribe û goriyan bigre. Bikaranîna madeyên bêhişker xetereke mezin li pêşberî civaka Îranê tê hesibandin û hemû tex û qatên civakê digel xeterên wê rûbirû ne.



## Ji Bo Her Xwendingehekê Meleyek Tê Danîn

**Agirî –** Wezareta Perwerde ya Komara Îslamî a Îranê biryar daye projebiryara 'cihgirkirina yekcarî a meleyan di xwendingehan de' rêve bibe. Li gor vê projeyê li hemû dibistan û xwendingehên Îranê Mele tên danîn. Ev proje piştî axavtinên Xameneyî hate holê ku gotibû divê navendên zanistî û xwendinê bên Îslamîkirin.

## Hejmara Goriyên Şewba Berazan Li Îranê Gihîşte 23 Kesî




**Agirî –** Rojnameya 'etemaad' çapa Tehranê diyar kir, heta roja 4ê Mijdara 2009an, hejmara kesên ku ji ber nexweşiya Şewba Berazan jiyana xwe ji dest dane, gihîşte 23 kesî.

Wê çavkaniyê eşkere kir, nêzîk 20 hezar kes vê dawiyê tûşî vê nexweşiyê bûne ku rewşa 1500 kes ji wan ne baş e û di bin çavdêriya bijîşkan de ne.



## Hêviyên Nû Ji Bo Dermanê Penceşêra Xwînê

**Agirî – BBC:** Grûpek ji zanyarên Îtalyayî piştî lêkolînên berfireh li ser demarên çêkirina xwînê di laşê mirovan de, ew zanyar vê dawiyê gihîştine hêviyek nû bo çêkirina dermanê nexweşiya penceşêra xwînê û berengarîkirina laşê mirovan li hemberî wê nexweşiya xeter.